Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 144

07'ê Çiriya Pêşîn a 2010

Buha: 150 Tûmen

# agirî

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

Hunermend û Pêşmrgeyê gelê me Heme Ceza di 1'ê Çiriya Pêşîn de koça dawiyê kir. Bi vê hincetê Partiya Demukrat a Kurdistana Îranê peyameke behî û serexweşiyê ji malbata zîndeyad re şand ku li rûpel 2'a agirî de hatiye. Riha wî şad û cihê wî biheşt be



# PDKÎ Baykota Nû Ya Amerîkayê Bi Kiryarek Jêhatî Dizane



Piştî wê ku DYA'ê li helwest û kiryarek bêmînak de 8 kes ji berpirsiyarên payebilind yên Komara Îslamî ji ber pêpeskirina mafên mirovan tehrîm, û sefer û dan û standinên aborî û malî yên wan li Amerîkayê de jî qedexe kir, pêlên keyfxweşiya azadîxwazan û alîgirên mafên mirov li Îran û cîhanê li dûre hat. PDKÎ di daxuyaniyekê de pêşwazî ji wê helwesta Amerîkayê kir... **R: 7**

Hesen Şerefî: "Ew karê qirêj di encam de dê her rûreşî û bêşermiyê ji bo encamderên wê re bihêle"

**R.3**



**Rûpel 2**



**Daxuyaniya Kongireya Netewên Îrana Federal...**

**Rûpel 5**



**Dengê Nivîskaran**

**Ebdulla Hicab**

**Rûpel 7**



**Teknîka Dubare A Rêberiya Îranê...**

**Arîn**

**Rûpel 9**



**Gelaleya Perlemana ..**

**Şerîf Felah**

# Daxuyaniya Kongireya Netewên Îrana Federal, Derheq Şermezarkirina Siyasetên Dijî Ziman Û Çandî A Rejîma Îranê

Kongireya Netewên Îrana Federal, bi hinceta 23'ê Îlonê û vekirina xwendingehan, bi derkirina daxuyaniyekê siyasetên dijî çandî û jinavnbirina zimanê netewên ne Fars di Îranê de ji aliyê desthilatê ve şermizar kir. Deqa vê daxuyaniyê bi vî awayî ye:

Roja 23'ê Îlona her salê li Îranê, di rastî de, roja çûna zarokan ji çanda (ziman û olî) ligel evîn û xoşewîstiya malbat û civakê bo çanda 86 salî a zal, fermî û qurixkirî a civaka Îranê ye.

Hînkirin û xwendina destpêkî ger hevterîb tevî çanda malbat û derdor û leyîstokên zarokan be, mijara fêrkirina nîşaneya xwendinê (tîpên dengdar û tîpên bêdeng) û fêrbûna xwendin û nivîsîna zarokan bi zimanê zikmakî ê xwe de ku peyvan jî bi başî dinasin, şiyan û karînên veşartî ên zarokan ku samana rastî û garantiya paşeroja her netewe û welatekê ye, dipişkivîne.

Bi qewlê Seidî Şîrazî, (dersê moellêm ger bûd zemzemêyê mohebbetî, comiê bê mekteb awered têflê gorîzpay ra), lê zarokên ku çanda (ziman û ol) a malbatî û civakiya wan tevî çanda fermî û qorixkirî a zal cuda be, û roja çûn bo xwendingehê tevî kesên weke (rêveber, nazim, mamosta) berbirû dibin ku li cihê waneya xoşteviyê, bi hêmaya zorgotinê û ziman nezanînê (wate zimanê dayîkê zarokan) xwe derbixin, rewş û seqaya fêrbûnê bo zarokan, cihê xwe cihek têkel bi dubendî û tundûtûjiya di navbera zarok û mamostayan dide. Bi vî awayî xwendingeh bo zarokan dibe îşkencegeh û nîşaneya xwendinê cihê xwe bi hînbûna zimanekî din û fêrbûn li rûyê dengên zimanekî nediyar dide ku tevî malbat û cihê yariyan û jiyana zarok û civaka wî bi tevahî nenas e.

Siroştî ye ku zarokên han hevrîşê lerzokiya kesayetî û bêhitbarî û bêbaweriya çanda malbatî û netewî a xwe dibin. Encama perwerdeyek wiha pirr ji tund û tûjî û dîktatorperwerî, yan dê bibe sedema asimîlasiyona qutabî yan jî bi berhevdan li gel desthilatdarî û fermîbûna sîstema yek kultor, yek ziman û yek olî a nihoyî, ew qutabî temenekê li gel hestkirin bi gunehek nekirî li nav xelkek bi ziman, çand û mesebê nefermî bi xwexoriyê ve diborînin. Yan li baştirîn halet de li dijî hovêtiya eşkere ya siyasî- çandî, anku pawanxwaziya zimanî- dînî a zal, yaxî dibin û ji bo cihgîrkirina demokrasiyê li rex azadîxwazan de bêhewl namînin. Xebat li dijî zimankujiyê ku şibî çandkujî û nifşkujiya hêdî û liserxwe ya netewên akincî li Îranê ye, erkê her mirovek xwedî şaristaniyet û azadîxwaz e. Em li Kongireya Netewên Îrana Federal de dê dirêjederê riya xwe bin û erkên mirovî û wijdanî yên xwe dê bicî bigehînin. Lê em çavnihêriya hevrêtiya kesatiyên azadîxwaz û azadbîrên fars bona tevlîbûna bi bizava fermîbûna perwerdeya zarokan bi zimanê zikmakî li Îranê de û wêdebirina vê sivikatiya 86 salî a zimankujî û dijî çandî li berçêla Îranê û netewa fars in.

**Kongireya Netewên Îrana Federal**

# Daxuyaniya Kongireya Netewên Îrana Federal derheq teqîna li bajarê Mehabadê



Kongireya Netewên Îranê Federal bi derkirina daxuyaniyekê, bûyera teqandina bombeyê li bajarê mehabadê û kuştin û birîndarkirina dehan kes ji xelkê wî bajarî şermezar kir û behî û serxweşî ji malbatên goriyan kir. Deqa vê daxuyaniyê bi vî awayî ye:

Roja 22'ê Îlona 2010'an terorîzma kor vê carê li bajarê Mehabadê bi teqandina bombeyê di nav temaşavenan de ku pirraniya wan jin û zarok bûn, cinayeteke bitirs û xof afirand.

Kongireya Netewên Îrana Federal , serbarê nîşandana xema xwe derheq kuştina wan welatiyên bêtawan û ragihandina behî û serxweşiya xwe ji malbatên wan, her terze kiryareke terorîstî ji aliyê her kesekê be, bi tundî şermezar dike.

- Çi terorîzma kor a dijberên rejîma terorîstperwer a Îranê li hundir û derve be û çi terorîzma dewletî a Komara Îslamî be ku di heyamê desthilatdariya xwe de bi rêberiya du weliyên Feqîh (Xumeynî û Xamineyî) rekurdarê kuştinê di dîroka 30 salî a hevçerx a Îran û cîhanê de ye.

Li cinayeta sînema Rêksa Abadanê, fetwaya kuştina bikom li kurdistanê, cinayeta bixof a Turkemen Sehrayê, Azerbaycan, Ehwaz (Xozistan), Belûçistan, Qeşqayiyan… bigire heya digihîje kuştina girtiyên siyasî ên dehsala 60'an ku xincî rehîn û girtî li çengên rejîma xwînmij a paremayî a Komara Îslamî a Îranê, tiştek nebûn.

Kuştin û îşkencekirina berdewam a cudahizran ji dîndaran û xeyrî dîndaran ji wan: Sunnî, Yarsan, Behayî, Babî, Sobî û Derwêş û… kuştin, tepeserkirin, îşkencekirin û destdirêjiyên seksî li girtîgeha Kehrîzekê, tevahiya wan, curek terorîzma dewleta rêxistiniye ku bo pêkanîna tirs û xofê û bêdengkirina bizav û xweragiriya neraziyan di nav xelkê de birêve diçe.

Kongireya Netewên Îrana Federal hêvîdar e ku bi hişyariya xelkê agah û çeleng ê bajarê mehabadê, sedema rastiya vê terorîzma kore wek sedema rastiya Sînema Rêksa Abadanê, bi netewa kurd û netewên din ên Îranê û xelkê akinciyê Îranê û herwiha bi xelkê cîhanê binasînîn heya ku zemîne û derfeta dadgeha adilane di pêşerojeke nizîk de pêk bihê.

**Kongireya Netewên Îrana Federal**

## Peyama Pîrozbahiya Sekreterê Giştî Ê PDKÎ Bo Serokê Nû Ê Partiya Kar a Welatê Brîtanyayê

**Rêzdar "Ed Miliband"**

Ez agehdar bûm ku roja 25'ê Îlona 2010'an, di kongireya Partiya Kar de cenabê te bi Serokê nû yê partiyê hatin hilbijartin.

Bi vê hilkevtê ez kêfxweşiya xwe nîşan didim û ji aliyê xwe û hemû rêberiya PDKÎ ve pîrozbahiyê li te dikim.

Bi vê hêviyê ku di bin rêberiya we de, peywendiyên dostane di navbera Partiya kar a Brîtanhya ê û partiya Demokrat a Kurdistana Îranê (PDKÎ) de bihêztir û berfirehtir be.

Tevî gerimtirîn slavan û hêviya serkevtinê ji bo we.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Sekreterê giştî Mistefa Hicrî**
**26'ê Îlona 2010'an a Zayîn**

## Di Pêwendî Tevî Jidest Çûna Hunermendekî Şoreşger De

Koça dawiya Heme Ceza, hunermendî xweştevî û naskirî ê warê hunera resen, ciyê xem û kovana me hemûyan e.

Hunermend Heme Ceza, hunermendeke şoreşger bû ku di heyamê temenê xwe de ji bilî vê yekê ku gellek salan wek pêşmergeyek bona serbestiya gelê xwe di berxwedanê de bû, xizmeteke zaf jî bi hunera resen û şoreşvaniya kurd kir û di vî derheqê de cîdestê wî diyar e.

Bi vê hincetê behî û serxweşiyê ji malbata vî hunermendî û hemû têkoşerên warê hunera resen a kurd û hunerdostan dikin û hêvî dikin ruha wî bi biheşta berîn şad be.

**Partiya Demokrat A Kurdistana Îranê**
**Sekrterê Giştî Mistefa Hicrî**

# Peyama Pîrozbahiya Sekreterê Giştî Ê PDKÎ Bi Hinceta Endambûna Çend Kurdan Di Parlementoya Welatê Swêdê De



**Birêzan:**
**Şadiye Heyderî.**
**Amîne kakebawe.**
**Roje Hîdîn.**
**Cebar Emîn.**
**ÎSmaîl Kamilî.**
Endamên nûhilbijartî bo Parlementoya Swêdê.

Bo me cihê kêfxweşî û serbilindiyê ye ku hûn komek ji xwîşk û birayên kurd ên me li welatê Swêdê serbarê pirsgirêkên koçberiyê, we kariye bi kar û tekoşînê bibin cihê baweriya xelkê li cihên cuda cuda ên wî welatî bi kurd û Swêdî ve, di encam de, di kêbirkêya hilbijartinan de serkevtineke berbiçav bi dest bixin.

Em bi vê hincetê pîrozbahiyê ji we û hemû kurdên akinciyên Swêdê dikin.

**Hevalno!**

Serbarê vê yekê ku her yek ji we berbijarê yek ji partiyên Swêdê bûn ku cudahî tevî hev hene, lê çavnêhiriya vê yekê ji we tê kirin ku bi yekdengî bikarin pirsa kurd bi awayekî bibandor di parlementoyê de bixin rojevê.

Di vî erkê girîng de ku ketiye ser milê we, hêviya serkevtinê ji we re dixwazim.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Sekreterê giştî**
**Mistefa Hicrî**
**27'ê Îlona 2010'an a Zayînî**
**5'ê Rezbera 1389an a Rojî**

---

# Hesen Şerefî: Ew kiryar bi qasî ku ji bo hemû aliyekê bijan bû, ewqas jî ji kar û kiryar û pirensîpên Kurdan bi dûr e

Roja Çarşemî, 31 ê Xermananê di dema birêvebirina rê û resma bîranîna yekem roja destpêkirina şerê Îran - Îraqê ku Komara Îslamî bi hefteya "Difai Muqedes" binav kiriye, li bajarê Mehabadê û di nav jin û zarokên ku ji bo temaşekirinê hatibûn, bombeyek teqiya û bû sedema kuştina 12 kes û birîndar bûna dehan kesên din ku pirraniya wan jin û zarok bûn. Berpirsên rejîmê hevdem digel teqînê bi bê yek û du di axaftin û derbirînên cuda cuda û jihev nakok de tiliya tometbariyê bo aliyê Partiyên dijber ên Kurdistanî dirêj kir û ew kar bi pilana Amerîka, Îsraîl û Partiya Beis dan zanîn.

Ew teqîn, cihê teqînê û helwesta rejîmê di wî warî de pirsiyarên zaf bo xelkê Kurdistanê, partiyên Kurdistanî bi giştî û xelkê Mehabadê bi taybetî pêş aniye. Bo bersiva wan pirsan û şiroveyên pêtir li ser wê mijarê, me hevpeyvînek taybet ligel birêz Hesen Şerefî, Cihgirê Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê pêk aniye ku em bala we xwandewanên hêja jêre radikşînin.

**Piştî teqîna li Mehabadê, di cih de opozîsyona Komara Îslamî ji aliyê berpirsên rejîmê ve hat tometbarkirin, eve di halekê de ye ku di dîroka xebata wan Partiyan de tucar nebûye û nehatiye dîtin ku ev Partiyane bo gihîştin bi armancên xwe, dest bo teqînewe û danîna bombeyan biribin, hûn wê bilez tometbarkirina Partiyên Kurdistanî ji bo çi vedigerînin?**



Teqîna li bajarê Mehabadê bûyerek nexweş û bijan bû ku mixabin di wê bûyerê de dehan kes hatin kuştin û birîndar kirin, ew kiryar bi qasî ku ji bo hemû aliyekê bijan bû, ewqas jî ji kar û kiryar û pirensîpên Kurdan jî bi dûr e. Her wek te bixwe jî amaje pê kir, gelê Kurd di xerabtirîn zirûfa xebatê de jî pena bo wan cure karên qirêj nebiriye, herçend bixwe zaf caran bûye goriyê wan karên neşayist û nerewa.

Ewa ku rejîm jî tiliya tometbariyê ji bo ev û ew dirêj dike, tiştek teze nine. Eva ji taybetmendiyên Komara Îslamî a Îranê ye ku di rewşên wiha de bi bê vekolîn, bê fakt û bi bê sedem di cih de dujminên derekî yan opozîsyona Kurd yan Îranî tometbar dike û ecêb jî eve her dema ku bi degmen di rewşek wiha taybetî de vekolîn yan lêpirsîn ji wan cure bûyeran kiriye, nerastiya wan tometan derketiye.

Mehkûmkirina wê cînayetê ku derheq jin û zarokan hat kirin, ji aliyê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û partiyên din ên Kurdî, karek di cihê xwe de û dirust bû ku digel pirensîp û bawerên wan hev digre û karek zaf asayî û heta erkê ser milên wan bû. Ez hez dikim ku vê yekê jî di bersiva pirsa we de zêde bikim ku lezkirina rejîmê ji tometbarkirina aliyan vedigere bo bernameya mifah standina rejîmê ji wê bûyerê, ji berku pêtir mîlîtarîze kirina deverê û ewlehîkirina deverên Kurdistanê û di kêleka wê yekê jî dubendî pêkanîn di navbera xelkê de û afirandina seqayek bêbawerî û pêşgirî ji yekgirtina pêtir a xelkê, ji armancên rejîmê ne.

**Ji çend salên dawî de bi awayekê di nav hêzên çekdar ên rejîmê de**

**helverîn dest pêkiriye ku bêguman daxuyaniya berê ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê jî ku bas ji lêborînê ji wan kesan dike, kartêkeriyek berbiçav di xurtbûna pêvajoya helverînê hebûye, gelo ew teqîne dikare mebesteke wa di pişt de be ku bixwaze pêşî ji wê pêvajoyê bigre. Wate çekdarên Mengur bîne ser vê bawerê ku venegerin himbêza xelkê û weke çekdarên rejîmê bimînin?**

Helverîn di nav refên çekdarên rejîmê de bi taybetî di wan yek du salên derbazbûyî de tiştek çavnihêrkirî bû. Çimku ew çekdar pêtir tevlî rejîmê û dezgehên tepeserkar in û ji nizîk ve dibînin ku çawan pîlanan bo xelkê dadirêjin û çawan cîbicî dikin û gellek caran jî wan çekdaran jî tevlî pîlanên xwe dikin. Lewra wan baştir rejîm nas kiriye û naxwazin ji wê çendê pêtir beşdarî wan cînayetan bibin ku rejîm û hêzên wê li hember xelkê dikin. Ji aliyek din ve jî asoya temen û mana vê rejîmê bi wan hemû nerazîtiyan ku xelkê ji rejîmê heye, ew rewşa aloz ku rejîmê bo xelkê afirandiye, xul û tarî dibe û naxwazin çarenivîsa xwe heya dawî bi çarenivîsa rejîmê ve girê bidin. Bila ewê jî bêjim ku helverîn tenê taybet bi hêzên çekdar nine, belkî aliyên din jî di nav dem û dezgehên rejîmê de vegirtiye. Her di wan yek du mehên dawî de me dît ku çend kes ji berpirsên rejîmê di Balyûzxaneya wê rejîmê li welatê Finlend, Norwej û Biljîkê de dest ji karê xwe vekişandin û nerazîtiya xwe li himber siyaset û kiryarên rejîmê derbirîn. Her di wê peywendiyê de, eşkera ye ku helwîsta Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di radeya xwe de bibandor û kartêker bûye. Guman tune ye ku rejîm di çarçoveya mifah standin ji bûyera Mehabadê û pilangêrî bo wê mebesta ku min amaje pê kir, hewil dide.

**Xebata sivîl her di destpêka hatine ser kara rejîma Îslamî ve heya niha aliyeke berbiçav ji xebata xelkê Kurdistanê bûye ku beşek zaf ji karîn û şiyana zeynî û eynî a vê netewê ji bo wê şêweya xebatê hatiye terxankirin û di wê riyê de jî goriyên zaf dane, diyare piştî Kongireya 14an a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û pejirandina dirûşma "bixelkîtir kirina xebatê" di wê Kongireyê de, bandora şêwexebata han zeqtir bûye û li ser deverên din ên Îranê jî bandorek zaf çêkiriye û heta kariye bala zaf ji karnasên derve û biyanî jî bo aliyê xwe rakêşe: Pirsyar eve, gelo tawanbarkirina opozîsyona Kurd û dirêjkirina tiliya tawanbarkirinê bo aliyê hêzên Kurdî dikare ew rûçikê geş yê sivîl tûşî çirijînê bike, bi taybetî ku ew teqîne di Mehabadê de rû da?**

Xebata sivîl û her şêwe xebateke din her yek di dema xwe de di bizava Kurd di Kurdistana Îranê de bandorek taybet bi xwe hebûye. Bi xelkîkirina xebatê hertim li ber çav û di destûra karê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de bûye, lê di Kongireya 14 ê pêde, pêdagirî û girîngiyek pêtir pê hatiye dayîn û bandora wê jî bi kiryar pêtir derketiye, rejîmê jî hertim hewil daye û rûçika Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi her cure xebatekê ve bişêwîne bike û berevaj nîşan bide, lê 65 sal xebata berdewam a vê Partiyê bi rûçikê demokratîk û geş yê wê tucar rê nedaye ku ew hewlên rejîmê bi akam bigîjin. Xêncî wê, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi hemû taybetmendiyên xwe ve bo xelkê Kurdistanê û heta bo zaf ji hêz û aliyên siyasî ên Îranî û derekî jî, ji wê çendê naskirîtir e ku Komara Îslamî bikare bi curek din bixe ber çav yan bide nasîn. Renge di wê derbarê de jî ku te bixwe îşare pê kir, dîsan hewlên xwe bide, lê ez xatircem û piştrast im ku dîsan hewla wê dê nezok bimîne.

**Encama wan karan dê bigîje kur, gelo dê bikare bi wan şîwe kiryaran yekrêziya xelkê Kurd tûşî cudabûn û jihev veqetiyanê bike?**

Ew karên qirêj di encam de dê her bêşermiyê ji bo encamderên wê bihêle. Hewlên rejîmê jî bo pilangêrî û dubendî pêkanîn û tevlîhevkirina yek rêziya xelkê Kurd hertim li rojevê de bûye, lê herwek heya niha nekariye meremên rejîmê bi cih bîne, di wê peywendiyê de jî dê her wusa be. Bi taybet ku niha xelkê zaf baştir ji berê rejîm nas kirine û baş ji pilangêrî û bernameyên dijîgelî ên wê agehdar in.

**Erkê xelkê Kurdistanê li hember wan şêwe kiryarane çiye û helwesta Partiyan gerek çawan be?**

Xelkê Kurdistanê erkê esasî yê xwe ku xebata dijî rejîma kevneperest û dijî însanî a Komara Îslamî ye, baş nas dikin û baş dizanin û di vê peywendiyê de jî bi xwîn û gorîkirin û bi fidakariyên kêmwêne ew erkê pîroz bi encam gihandine, li hember wan şîwe kiryarane de jî pêwîste bi aramî û dilfirehî ve riftarê bikin û hewil bidin pîlanên rejîmê û hewlên dem û dezgehên tepeserkar ên wê ji bo mifahstandin ji wê bûyerê pûç bikin. Helwesta Partiyên Kurdî dibe herwek derbazbûyî pêdagirî û xurtbûn li ser maf û azadiyên netewa Kurd li Kurdistana Îranê be û li peywendî digel wan cure bûyeran de jî her wa li ser hest bin û bi helwestên xwe ên dirust pêşî ji pilana mifahstandina rejîmê ji wan kiryarên qirêj bigrin.

## Sefera Ehmedînijad bo Lubnanê, destpêkek ji bo alzoziyên Li wî welatî

**Dara Natiq**

Sefera li pêşberî serkomarê Îranê bo welatê Lubnanê li 13ê Çiriya pêşîn bûye cihê nigeranî û gengeşeya navbera aliyên siyasî yên Lubnanê û herwusa raya giştî a cîhanê û nemaze Amerîka û Îsraîlê.

Li gor rapora navenda Amerîkayî a bi navê "Hidson Niyoyork" Hizbulah û Îranê qazanc û berjewendiyên hevpar di pêkanîna alozî û tevlîhev kirina rewş u zirûfa siyasî a Rojhilata Navîn de hene. Vê raporê herwisan daye eyanê ku Hizbulah bi harîkariya Îranê dixwaz ku bi derbeya leşkirî û afirandina kudetayekî li dijî dewleta henoke a Lubnanê raya giştî derheq bi rola wê hizbê di terora Refîq Herîrî a di sala 2005'an de bixapîne. Ewa di halekê de ye ku biryar e di demek nizîk de dadgeha navneteweyî a taybet bi dosiyeya terora Refîq Herîrî di ragehandina zaniyariyên destpêkî ên vekolîna xwe de bo raya giştî hin rayedar û kesên ser bi Hizbulahê di encamdana wê kiryarê de bide eşkere kirin. Lê Hizbulaha Lubnanê jî bi awayekî tund tevî dadgeha navneteweyî dijberiyê dike û zext û givaşan dixe ser dewleta Seid Herîrî heya ku ji dabînkirina wê bûdceya ku biryar bû dewleta Lubnanê bo domandin û bi encam gehandna wê dadgehê bide, poşman bibe û ew dadgeh bihê sekinandin.

Ji aliyekî din ve Ehmedînijad ragehandiye ku ew dixwaze di dema sefera xwe bo wî welatî de seredana başûra Lubnanê anku xala tixûbê navbera Îsraîl û Lubnanê bike ku beriya du salan bo heyamê nizîk mehekê şerê navbera Îsraîl û Hizbulahê têde qewmî bû dixwaze û bo aliyê Îsraîlê keviran bavêjê û hevpeymaniya xwe bi Hizbulahê re dubare bike. Lê ew sefere û biryara han ya serkomarê Îranê ne tenê bûye cihê nerazîbûna beşek berçav ji aliyên siyasî ên nava Lubnanê, ji berku bûye cihê nîgeraniya Îsraîlê û hêzên nizamî yên vî welatî ku niha di amadebaşiyek tewaw dane û xwe ji bo her cure kiryarekê li hember Hizbulahê de amade dikin. Lê li gor rapora han çûna Ehmedînijad bo wê deverê carek din yê bibe sedema alozî û azirandina herdu aliyan û nemaze dewleta Îsraîlê.

Nawenda "Hidson Niyoyorkê" herwisan di rapora xwe a derheq şirovekirina sefera Ehmedînijad bo Lubnanê de dibêje ku: Ehmedînijad bi awayekî micd pêşwaziyê ji wan bûyer û aloziyên ewlehî ku di nava axa Lubnanê û herêmê de diqewimin dike, ji berku aloziyên han di herêmê de bi qazancê pirosesa domandna bernameyên etomî yên Îranê ye û raya giştî bi hebûna wan aloziyane hay ji piroseya han namîne û berqesd dixwazin raya giştî li ser bernameya navikî berxwar û bilarê de bibin.

Di hemen demê de Wezareta Derve ya Amerîkayê roja Sêşemiya derbasbûyî bi awayekî fermî nigeraniya xwe derheq bi sefera Ehmedînijad bo Lubnanê da eyanê. Hîlarî Kilînton di dema hevdîtina xwe bi Mîşl Silêman Serkomarê Lubnanê di perawêza kombûna giştî a Saziya Netewên hevgirtî di heyva borî de, bi hûrî nigeraniya Amerîkayê ji aliyên cur bi cur ên sefera Ehmedînijad bo Lubnanê da xuya kirin û jêre got ku pêwendiyên Îranê bi Hizbulahê re serbixweyiya wî welatî dibe bin pirsyarê û ew yek bûye cihê nigeraniya Amrîkayê.

Lê sefera Ehmedînijad bo Lubnanê heya niha çend caran hatiye paşxistin û çawedêrên siyasî dibêjin ku sedema vê çendê vedigere ser vê yekê ku dewleta Seid Herîrî bi tewahî dijberê wê serdana serkomarê Îranê ye û Hizbulah jî bo encamdana wê seferê zext û givaşan dixe ser dewletê.

## RONÎ

## Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re



**Ebdulla Hicab**

# Dengê nivîskaran

Li rojên navbera 25-30 meha 9, kongireya 76 mîn ya PENa Navneteweyî li bajarê Tokyo paytextê Japon, bi navnîşana "Jîngeh û Wêje; Peyiv dikrain çi bikin" birêve çû. Şandek 2 kesî ji PENa Kurd di nava wan 99 navendên PENên neteweyî ji welatên cuda de bû ku ji koma 144 PENên endam li PENa Navneteweyî di kongireya îsal de beşdar bû. Şandên beşdar mijarên girêdayî bi jîngeh, aştî, rewşa jinan, nivîskarên di girtîgehan de, ziman û werger û kar û xebata pêşeroje PENa Navneteweyî bi berfirehî anîne ber basê û hin ji şandan pêşniayrbiryarên girêdayî bi dozên xwe weke biryarên kongirê dane pejirandin.

Piştî mêvandariya vekirina kongirê ku êwareya roja 25.09 birêve çû, civîna fermî roja 26.09 bi axaftina mîvandarê kongireyê, Serokê Navenda PENa Japon destpê kir. Xanuxwê di axaftina vekirina Kongireyê de hêvî xwest ku civîna îsal ji bo pêşxistin û xurtkirina armancên PENa Navneteweyî bibe alîkar. Rojeva kongireyê pir dagirtî bû, lê mijarên sereke ku ji her babetê pitir bandor li ser nîqaşan hebû bi bîrxistina erk û berpirsayetiya nivîskaran di civakê de û rola PENê di pêşvebirina aştî, wekhevî û pîvanên mafên mirovan de bû.

Di axaftina vekirina kongirê de, rêzdar John Ralston Saul, serokê PENa Navneteweyî giringî da bi rola nivîskaran di xurtkirina bingeha azadiya bîr û ramanê de û weha got: "*Werin em xwe nexapînin. Em di dewranekê de dijîn ku metirsiya li ser azadiya ra û ramanê, li ser azadiya wêjeyê û li ser kultûrên piçûk roj bi roj zêde dibe. Niha dema serhildana sîstemek nû ya autorîter an deselatxwaz li cîhanê ye, demek ku t da pêlên nûye modela kevne zêdegaviyên neteweperistî an nasyonalîzmê birê ketiye, serhişkî û xapandina xelkê li her deverên cîhanê zêde dibe. Em li vir in, li Tokyo heya li ser navê ew kesên ku ji nivîsandin û axaftinê hatine bêpar kirin dengê xwe bikin yek û hawara xwe bi dengê wan re bilind bikin*".

Nivîskarê xwedî berpirsayetî dengê kesên hatî bêdeng kirin e û divê li ser bingeha wê berpirsayetiyê tev bigere. Armanca sereke ya PENa Navneteweyî jî ewe ku wê erkê bigre ser milê xwe û di wê çarçoveyê de gavan bawê. Lewma wê dema ku êş û elemên nivîskar û rojnamevanên Kurd di girtîgehên Komara Îslamî de, an banga aştîxwaziye gelê Kurd dikete rojeva PENa Navneteweyî, bi sedan nivîskaran dengê xwe bi hawara gelê Kurd re dikirin yek û daxwaziya bi dawîanîna rewşa bindestiya Kurdistanê dikirin.

Sala 2010 her wisan hevber e digel 50 saliya damezirandina Komîteya PENa Navneteweyî ya Nivîskarên di girtîgehan de. Ji ber wê yekê civîna îsal giringiyek taybet da rewşa nivîskar û rojnamevanên girtî. Di civînê de eşkere bû ku niha wê gavê PENa Navneteweyî ji bo parastina pitir ji 900 weşankar, nivîskarên weblogên internetê, sernivîskar û rojnamevanan li hermû deverên cîhanê kar dike. Di nava wan xebatkarên meydana wêje û nivîsê de gelek nivîskar û rojnamevanên Kurd hene ku PENa Navneteweyî bi hîmdarî û alîkariya Navenda PENa Kurd, bi baldariyek taybet ji bo azadiya wan kar dike. Di wê çarçoveyê de rewşa îro ya girtiyên doza Kurd Muhemed Sidîq Kebûdwend, Bêhzad Kurdistanî, Muherem Erbay û gelek nivîskarên Kurd di girtîgehên Îran û Turkiyê de bi caran kete rojeva Kongireyê û nîqaş li ser hate kirin.

Ji wê bi der, dîtin û ramana mamostayê şehîd, Ferzad Kemanger li ser aştiyê ku ji nameya wî ya dawî di derbarê hêviyên aştiyê de hatibû girtin, weke sembola hêviyên gelê Kurd ji bo aştî û jiyana azad bi ser atmosfera kongireyê de bandorek giring danî. Heza Ferzad ji bo jiyanê, hêviyên wî ji bo pêşerojê, jiyana dûr ji tirs û duçavkiyê ku wî hêvî dikir, her yekê bi şêweyekê bandor danîbû ser her yek ji delegeyên beşdar di komîteya aştî ya PENa Navneteweyî de.

Li ser daxwaza PENa Kurd, civîna nivîskarên cîhanê li Tokyo banga çareseriya aştiyaneye pirsa Kurd li Îran û Turkiyê kir û pêvajoya ku niha gelê Kurd li Başûrê Kurdistanê û Îraqê destpê kiriye weke mînak ji bo çareseriya pirsa Kurd li welatên din anî ziman. Di wê çarçoveyê de bi dawîhatina şer û guhertina zêhniyeta şerxwaz weke pêwîstiyek henokeyî di riya çareseriyê de bi pêwîst hate zanîn. Di heman demê de PENa Navneteweyî pêşniyara PENa Kurd di cî de dît ku daxwaz dike ji bo vedîtina riya çareseriyê pêwîste hemû aliyên beşdar di şerê Kurdistanê de bi pêşengên xebata gelê Kurd li her yek ji beşên Kurdistanê re bikevin diyaloga cidî ya çareseriyê. Her çend li gor dîtina PENa Kurd ew yek ji bo çareserkirina pirsa Kurd li Îranê di çarçoveya rêjîma îro ya Îranê de mumkin nîne.

Kongireya PENa Navneteweyî her wisan giringî da xebata ji bo avakirin û bi pêşxistina civaka sivîl, parastina pîvanên mafê mirovan û yasaya navneteweyî li Kurdistanê, û ew pîvan weke bingeh ji bo xurtkirina bingeha aştiyê binav kir. Piştre Komîteya Aştiya PENa Navneteweyî biryar da ku mijara aştî li Kuridstanê bixe rojeva sereke ya xwe û di dema pêş de bi cidî ji bo bicîh kirina aştî li Kurdistanê kar bike. Di wê çarçoveyê de hêvî tê kirin ku civîna heyva Gulana sala 2011 ya Komîteya Aştiyê zêdetir pilan û projeyên wê komîteyê ji bo aştiyê zelal bike.

Xêncî rewşa şer û aştî û ya rewşenbîrên girtî li ser doza siyasiye Kurd, mijara ziman û wêjeya Kurdî jî di rojeva kongireya PENa Navneteweyî de bû. Di wê çarçoveyê de PENa Kurd ew dîtin da zelal kirin ku bikaranîna têgeha zimanê "kêmenetewe" ji bo zimanê Kurdî xedreke dîrokî û şaşîtiyek zanistî ye. Ji ber ku nabe tu gel weke kêmenetewe û tu ziman weke zimanê kêmeneteweyan bê nasandin. Zimanê Kurdî zimanê Gelê Kurde ku xwediyê welatê xwe, dîrok û kultûra xwe ye. Bi wê dîtinê, şaş e ger aliyek an kesek zimanê Kurdî weke zimanê "kêmenetewe" binav bike. Weke çawan ku zimanên Îtalî, Feranseyî û Almanî li Swîsê, zimanê Feranseyî li herêma Quebec li Canada, zimanê Aboriginiyan li Australia û zimanê "Samî" li Norwêj weke zimanê kêmneteweyan nayê temaşe kirin, zimanê Kurdî jî li Kurdistanê zimanê kêmeneteweya Kurd nîne, çunkî Kurd jî kêmenetewe nîne.

Li ser bingeha wan dîtinan, şanda PENa Kurd basî daxwaz û hêviyên Kurdan ji PENa Navneteweyî û ji nivîskarên cîhanê kir û daxwaz kir ku piştgiriyê bidin pêşniyara ku mafê perwerdeya bi zimanê dayîkê weke mafê mirov dihesibîne. Pêşniyara şanda Kurd ya ku bi fermî naskirina "Mafê perwerde bi zimanê dayk li ser axa xwe" di çarçoveya yasayên navneteweyî û li jêr sîvana Neteweyên Yekgirtî de bê pejirandin, bi piştgiriyek berfireh kete rojeva karê PENa Navneteweyî û biryar hate dan ku ji niha û pêve PENa Navneteweyî li ser wê mijarê bi cidî kar bike.

Bi wan hemû hewl û pêngavên erênî û dilxweşkere PENa Navneteweyî û sozên bi dehan nivîskaran ji bo piştgiriya doza Kurd re, erka xwediyê dozê ji ya her kesî zêdetir e. Weke çawan ku hebûna şanda PENa Kurd ji bo pêşvebirina daxwazên nivîskarên Kurd çarenûssaz bû, ji bo pêşerojê jî barê girane xebat di wê çarçoveyê de her li ser milê nivîskarên Kurd bi xwe ye. Xebatek hevgirtî di çarçoveya saziyên neteweyî de, wê cî û giringiya nivîskarên Kurd di çarçoveya saziyên navneteweyî de hê xurttir bike. Ew yek dikare ji bo bidestxisitina destketên hê baştir alîkar be.

# Li jêr sîbera darên wezaretê de

**M. Şucaî**

Heyameke ku seba jidestdayîna dostên hêja ên wek Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî, dilê min gellek girtî ye. Serbarê derbasbûna bi roj û salan jî bi ser vê bûyerê, dîsan jî mirov êş û azarê dikşîne. Lê em ji bilî domandina riya xebatê dikarin çi bikin?

Herçend ku tejî kirina cihê wan hêjayan gellekî zehmet bûye û niha jî her zehmet e, lê kêfxweş im ku hevalên PDKÎ, şiyan vê riyê bidomînin.

Ez li payîza sala 1345'an li jêr sîbera darên Wezareta Perwerdê a Îranê de tevî Dr. Sadiq nasiyar bûm. Wê demê ez û yek ji dosên xwe li bajarekê li Loristanê ve bo Îranşar û Xamişê hatibûne sirgûnkirin. Seba vê yekê min li cem dozgeriyê bi dijî serokê îdareya perwerdê doz vekir, Sawak jî razî bi vê yekê nebû. Helbet em amade nebûn ku vî hukmî derheq dûrxistina me birêve bibin. Wê demê Dr. Sadiq û çend kesên din ji Mehabadê ve bo Erakê hatibûne dûrxistin. Wan jîr serdana wezaretê dikir û bibûne mêhvanên li jê daran. Serokê pêşîn ê îdareya perwerdê ê bajarê me ku yek ji dostên Bethayî, berpirsyarê giştî ê karûbarên karguzîniyê û birayê wî jî berpirsê giştî ê karûbarên Kurdistanê bû, piştevanî ji me kir û ew yek jî bû sedem ku Bethayî îzin ji me re wergirt ku em herne Kurdistanê, û Dr. Şerefkendî jî em bi hevalên xwe ên Kuristanê dane nasandin. Em çûne wê herêmê û her ji salên yekemîn de em ketne hizra damezirandina kilûpeke şetrencê li nawenda kulturî de. Dersxwanên li vê herêmê de gellek zû bûne hogirê şetrencê û roj bi rojê hejmara wan zêde dibû. Vê carê jî li ser biryara SAWAK, li daviya sala xwendina 45-46'ê em bo Tehranê hatne dûrxistin. Vê carê jî em tevî hinek hevalên din wek Ceifer S, li Erakê de nasyar bûn, lê têkiliyên me bi Dr. Şerefkendî re her berdewam bûn. Cara daviyê ez û Dr. Sadiq Şerefkendî her du jî bûne berpirsyarê zanîngeha bilind (zanîngeha Terbiyet Moelim). Li wê serdemê de hevaletiya me gellek xweş bû. Piştînîvroya hemû rojên çarşemiyan em bi grûpekî 20-30 kesî ji hevalên xwe ên wek Hemîd Musediq û gellek caran Dr. Sadiq, li kafeya 101'ê a şeqama Pehlewî li berbirûyê sînema Atlantîk li dewra yektir diciviyan û mijûl axavtinan û vexwarinê dibûn. Di nav van axavtinan de carna pirsên siyasî jî me bas dikirin. Dr. Şerefkendî pitir bas ji otonomiya ji bo Kurdistanê û demokrasiya ji bo Îranê û xebata li nav refên PDKÎ de dikir. Bîr û baweriya me her du kesan jî ku çepî bû, gellek nêzî hevûdin bû. Wê demê Dr. Sadiq ez han dam ku di cihê zimanê Îngilîzî de, ez herme Firansayê bo hînbûna zimanê firansî, ku min jî ev yek qebûl kir.

Dr. Sadiq sala 1973'an çû Fransayê û piştre ji min re jî vîza wergirt û ez jî salekê piştre çûme Firansyê. Wî li balafirxaneya Urlî pêşwazî ji min kir. Roja din ku yekşemî bû, wî ez birme Cimata Pîrlaşîzê, û li wir de me bejna xwe bo Sadiq Hidayet û Muhendis Rezewî û ...tevand.

Wê demê bi tu awayî min nedizanî ku ew dostatiya û ew hevdîtina me li vê cimatê de yê bibe hevdîtina hertimî.

Dr. Sadiq li dostatiyê de mirovekî mezin û li ber dilan, û li siyasetê de jî kesekî bîrmend û hevalekî zor nêzîk bû. Ew li sala 1976'ê û ez jî sala 1977'ê piştî wergirtina pileya duktorayê em vegeryane Îranê û em li zanîngeha Terbiyet Moelim de hatne damezrandin. Li serdemên herî aloz ên berî şoreşê de berdewam me bas li siyasetê dikir û me ji bo avakirina saziya netewî a zanîngehan tayê zanîngeha Terbiyet Moelimê me hewil dida. Dr. Sadiq, Dr. Qasimlo û heta ez jî li ser vê baweriyê bûm ku dibe derfet bi Şapûr Bextiyar bihête dan daku deshilatekî xelkî cihgir biket û kadroyên şoreşê jî baş perwerde bin, hekî ne em ber bi deshilatekî mesebî ve diçin. Min bas ji şoreşê û avakirina rêkxirawên netewî ên zanîngehan ku çavkaniya girevên heftiya Wehdetê bûn kir, niha jî ez dixwazim ku bas ji bûyerekê bikim ku ez û Dr. Sadiq em her du jî şahîd bûn û hetanî niha jî di vê derheqê de tu zanyariyek bilav nebûye. Ew bûyer renge bala dîrokzanan bo aliyê xwe rakêşe.

Heftiya "Wehdet" dest pê kiribû, û girevên giştî ber bi lêdana derba herî daviyê li cendekê rejîmê diçûne pêş. Di vê serdemê de saziya netewî a zanîngehan biryar da ku karûbarên zanînghan ser ji nû ve, dest pê biket, û bo destpêkirina zanîngeha Terbiyet Moelim xelkê bang bikin da ku hinek kesayetiyên siyasî û rewşenbîrî û mesebî bo gotar xwandinê bêne bangkirin.

Ji aliyê praniya endamên şêvra S.M.D Bangkirina ji Ayetullah Taliqanî û Bêhazîn û ... hate pesendkirin, ji bilî çend endamên din ên wek Dr. Taha Qasimî ku dijî vê yekê bûn ku kesê wek Taliqanî û Bêhazîn bihêne bangkirin. Li daviyê de biryar hate dan ku bo bangkirina Taleqanî bi awayê fermî sê kes ji endaman serdana mala navbirî bikin û li derheq beşdariya Bêhazîn jî tevî navbirî behs û gengeşe bê kirin.

Ew pêşniyara ji aliyê çend kesên wek Dr. Qasimî û çend kesên din ku kevirê îslametiyê li singê xwe didan û dardestê Dr. Bihêştî û Hesen Ayet bûn hate gorê.

Şevekê berî mîtîngê sê kes (Dr . Qasimî, Dr. Dadger û nûnerekî din) diçne mala rêzdar Taliqanî. Lê ji ber vê ku pêştir navbirî agehdar nekiribûn hetanê 8'ê êvarê li jor de çavnihêrê navbirî dimînin. Lê piştre ji ber vê rêza ku navbirî ji bo zanîngehiyan hebû, wan werdigre.

Ew pirsa ji aliyê nûneran ve tê bas kirin, rêzdar Qasimî dibêje gelo hûn dikarin tevî rêzdar Bêhazîn ku li eniya çep de ye beşdariyê bikin. Ew li bersivê de dibêje zor baş e, û ez jî hez dikim ku navbirî bibînim, çimkû li wê dema ku navbirî li girtîgehê de bû, ew derfeta ji bo min pêk nehat.

Wî piştre got li ber vê ku ez şevê li mal de narazêm, sibê yek ji we bête şeqama Text Cemşîd bo cem mala Rezayî da ku min bigehîne zanîngehê. Bi Dr. Dadger pêşniyar tê kirin ku wî erkî bigre stûyê xwe û rêzdar Qasimî jî dibe rêveberê mîtîngê û kesê sêyemîn jî dibe berpirsê anîna Bêhazîn.

Demjimêr 10'ê sibê, li bereberê birêveçûna mîtîngê em çûne zanîngehê û me dît ku rewş pirr dijwar e. Me rû kire Dadger û me gotê gelo çima Taliqanî nehatiye, Dadger got dema ku em çûne ber deriyê mala Taliqanî, lê medît ku rêzdar Qasimî jî li wir e. Dema ku me jê pirsî ku tu çima hatî vir, wî got hewce ye em çend pirsan ji bo Taliqanî zelal bikin. Piştre dema ku Taliqanî hat û got çima hûn her du jî hatine vir, Qasimî gote Taliqanî, renge bi qazancê we nebe ku hûn bi Bêhazîn re di vê mîtîngê de beşdar bin, çimku xwendekarên misilman ji vê pirsê gellek aciz dibin. Piştre Taliqanî gotê, min her bawerî bi wan destebendiyan jî nine û heta hevalekî ji Parîsê jî ji min re telefon kir, lê min gotê ezê beşdariyê bikim, lê niha ku hûn her du jî mamostayê zanîngehê ne û hatine vir, kerema xwe basê destebendiyan nekin, çimkû destebendî ne dirust e. Taliqanî piştre dibêje ku îznê bidne min ku ez peyamekê ji bo mîtîngê bişînim, û piştre rû dikete Xanima Eizem Taiqanî û dibêjê ku peyamê binivîse û bixwe jî bixwîne, ku deqê wê bi vî awayî bû;

Bi navê xwedayê mezin û bê heval

Gelî hevalan! Biborin, seba vê dema ku min pêştir bo televîzyona Amerîkayê danîbû, min nekarî li rê û resma îro de beşdariyê bikim, lê nivîskarê xebatkar, Bêhazîn, û ... beşdarin.

Ez hêvîdar im ku xwendekarên hêja û xelkê xebatkar ê Misilman bi giştî alîkar bin da ku li rewşeke aram de basên baş û pirr naverok birêve biçin, înşallah.

Dr. Qasimî daxwazê li Xatû Taliqanî diket ku peyamê bidê wî daku ew bixwe vê peyamê bixwîne, lê ew qebûl nake.

Her ku min pê danî nav zanîngehê min dît ku pîlan darêtine û gotibûne xwendekaran ku Taliqanî seba beşdariya Bêhazîn nehatiye. Li vê demê de bû ku berpirsê civînê bi navê Dr. Wisûlî daxwaz kir ku navê axavtinvanan bihê xwandin, lê Qasimî wek rêveberê mîtîngê amade nebû ku navê Bêhazîn ragehîne.

Hevkarekî din ê me çû pişt tirîbonê û kurtiyek ji jiyannameya Bêhazîn xwend, ku ji nişkêve çend kesan dirûşm bi dijî Bêhazîn dan. Hevkarê me jî got Bêhazîn dawî girtiyê siyasî ê serdemê rejîma Şah bûye, û dirûşma "silav li Bêhazîn" got ku xelkê jî ew dirûşm dubare kirin.

Dema ku Bêhazîn hate pişt tirîbonê, nêzî 40-50 kes ji xwendekaran (yekemîn grûpa cilik şexsiyan) êrîş kirne ser wî û ew piyaleya tijî avê awêtne ser dev û çavên wî û bi vî awayî ew mîtîng têk çû, û Xatû Eizem Taliqanî jî her derfeta axavtinê peyda nekir.

Her di vê rojê de em bi giştî tê gihîştin ku ew grûpa paremayî nahêlin ku şoreş riya xwe a rastîn bipîve. Piştre her ew belaya hate serê me ku em dizanin û eva jî yek ji wan kiryarên destpêkî bû bo qorixkirina şoreşê.

Tevî rêz û silavên min ên bê davî ji bo gişt şehîdên riya azadiyê, bi taybetî dostê min ê şehîd, Dr. Sadiq Şerefkendî, û ez hêvîdarim ku rojekê deshilatekî demokratîk û federal bihê avakirin.

## Aqibet cîhan hişyar bû: Tehrîma berpirsiyarên rejîmê ji ber binpêkirina mafên mirovan

Piştî wê ku DYA'ê li kiryarek bê mînak de 8 kes ji berpirsiyarên payebilind yên Komara Îslamî ji ber pêpeskirina mafên mirovan tehrîm û sefer û dan û standinên aborî û malî yên wan li Amerîkayê de qedexe kir, bûye cihê keyfxweşiya azadîxwazan û alîgirên mafên mirov li Îran û cîhanê. Hevdem kempîna navnetewî a mafê mirov li Îranê de ji hemû welatên cîhanê xwast ku rayedarên payebilind yên Komara Îslamî ku berpirsiyarê binpê kirina mafê mirov li Îranê de ne, tehrîm bikin. Herweha serbarê pêşwazî kirin ji vê biryara Amerîkayê, ji Kanada, YE, Îmaretên Yekgirtî yên Erebî, Malizî û Taylend' ê ku bûne bi cihek ewle ji bo parastina heyîn û samana berpirsiyarê rejîmê, daxwaz kir bilez li vê derheqê de reaksiyona xwe nîşan bidin.

8 berpirsên tehrîm bûyî ev in: Mohemed Elî Ceferî( Fermanderê Giştî yê Sipaha Pasdaran), Sadiq Mehsûlî(Wezîrê niha yê Berevaniyê û Wezirê hundir yê berê), Xolamhusên Muhsinî ijêyî( Dozgerê Giştî yê welat û Wezîrê berê Yê Itilaatê), Seîd Murtezewî(Dadsitanê berê yê giştî û Inqilaba Tehranê), Heyder Mislihî(Wezîrê Îtilaatê), Mustefa Muhemed Necar(Wezîrê Hundir û cîgirê fermanderê giştî yê hêzên Întizamî), Ehmed Riza Radan( Cîgirê Fermanderê Giştî yê hêzên Intizamî) Husên Taib( Cîgirê Îtilaata Spaha Pasdaran û fermanderê berê yê hêzên besîc).

Li daxuyaniyê de hatiye ku Amerîka bi micidî li ser pêşvebirina mafê mirov li seranserê cîhanê bi taybet li Îranê de mikûr û pêdagir e. Her wekî wê ku Obama li axaftina xwe ya li civîna giştî a NY de anî ziman ku mafê mirov gotar û çemkek exlaqî û piraktîk ji bo Amerîkayê ye. Amerîka li rex xelkê Îranê ku dixwazin dengê wan bihê guhdarî kirin, dê bisekine.

Eva jî destpêka piroseyekê ye ku diviya gelek zûtir bihatiba kirin û herweha diviya ew tehrîm hemû aliyên berpirsiyar bi taybet Xamineyî û Ehmedînijad li xwe bigre.

Bi giştî eva eyankerê vê rastiyê ye ku heta rojava çavên xwe li hember cinayetên Komara Îslamî de bigre, nikare îdiaya berevanî ji demokrasiyê bike û heta pişta xwe bide azaadîxwazên Îranî ku li nav xwîna xwe de hatine gewizandin, nikare bêje ez alahilgirê demokrasiyê li cîhanê di riya evîndarên azadiyê de me û dema ku xelkê Îranê dibîne ku rojava çavan li rêber û berpirsiyarên cinayetkar yên wan piştevaniyê dike, her wekî wê ku heya niha kirine, dê çawan li ser wan bifikirin. Lewma ev gava Amerîka heya qasekê mural û rohiye da ber dilê azadîxwaz û têhniyên azadiyê li Îran û cîhanê de.

Rojev

# Teknîka dubare a rêberiya Îranê

**W: Arîn**

Rîçard Hirtsîngir, şirovekarê Rojnameya Almanî a "Dei Wolt" çend rojan berî niha li şiroveyek xwe di wê rojnameyê de diniwîse ku rêberiya Komara Îslamî bi caran ji şêwe û teknîka dubare bi rojava re mifah standiye û liviyaye.

Ew, teknîka rêberiya Komara Îslamî bi vî awayî dide eyanê: Komara Îslamî li destpêkê de rojavaya ku jê bi kerb û kîn in, bi gotinên xwe yên êrîşberane tûşî şok û heyrîmanê dikin û paşan li dema ku rojava li halê reaksiyonên dîplomatîk yên kêrahtî ji bo handan û mendehoşiya xwe ye, bilez radigehîne ku amadeyî got û bêjan di nîqaşên etomî de ye; nîqaşek ku dawiya wê tune ye.

Bi raya vî şirovekarî, rastiyan nîşan daye ku rêberiya Tehranê her car di vê teknîka xwe de biserketiye. Ew dinivîsîne ku dewlet û dîplomatên rojavayî jî hercar teslîmî sozên pêşniyazkirî yên Tehranê dibin û bi nirxandina rayên ku li Îranê de li çarçoveya vê pêşniyazê de ne, hewil didin bizanibin ku ew pêşniyaz heya çiqasekê micid e.

Hirtsîngir li ser vê bawerê ye ku vê carê jî wusan bû:" Gotinên bê bingeh û dînane yên Ehmedînijad li civîna salane ya NY'î de ku wî xwe têde bi teoriya pîlanê mijûl û germ kir û got: enî û aliyek ji dewleta Amerîkayê bi xwe berpirsiyarê bûyera 11'ê Septamberê ye, lewre tenê hewce bû ku dîplomatên rojavayî li helwest û reaksiyona derheq gotinên wî de hola civînê biterkînin. Mirov ji xwe dipirse, başe çima ew qehreman(dîplomatên Rojava) her li destpêkê de çerenivîs û rewşa xwe bi wî serokkomarê bikerb û kîn û devbixwîn yê Îranê rohn nakin?

Ew dinivîsîne girîng nine ku Ehmedînijad gaziya jiholêrakirina Îsraîlê dike yan Holokastê înkar dike, yan Îranê bi hêzek hevterîb li gel Amerîkayê dihesibîne. Ew dipirse ma gelo gotinên wî bi qasê hewce bêser û ber û şêtane ninin ku bikare ev kême hêviya rojava li vedîtina eqlaniyetê li Ehmedînijad de bike bolqa ser avê?

Nivîskar îşare bi gotinên Wezîrê Karê Derve yê Alman dike ku piştî nîşandana amadegiya Ehmedînijad ji bo destpêka got û bêjan, bilez helwesta xwe nîşan da û ew bi nîşaneyek erênî da zanîn. Li gor wî heya dema ku Îran dawî bi mehandina Uraniyomê nehîne û îmkana lêgerîn û vekolîna bi tewahî a navendên navikî pêk neîne, her eva ku bi salan e Şêwra Ewlekar xwazyarê wê ye, îmkanek ji bo got û bêjên bi wî welatî re nine.

Hirtsîngir bawer e ku zêdeyî wan xwastekan livîn û riftarkirin, tiştek xincî dem kuştinê nabe û Tehran jî hertim wê teknîkê weke alavekê ji bo kirrîna demê bikar tîne heta ku teknolojiya xwe ji bo



çêkirina bombeya etomî tewaw bike.

**Rejîmek ku neyarên navxweyî bi "dujminên Xweda" dihesibîne**

Şirovekarê "Die Woltê" dibêje ku rejîma Komara Îslamî a Îranê tenê bi vê sedemê mezintirîn gef û serşoriya şaristaniyeta mirovahiyê nine, û renge jî bi zûyî bigihîje çeka navikî, yan bi şandina terorê, devera Rojhilata Navîn ne ewle dike û yek ji astengên sereke li ser riya aştiya Rojhilata Navîn e.

Bi raya Hirtsîngir, bi sîstemekê re ku rexnegir û neyarên navxweyî yên xwe bi "dujminên Xweda" dide zanîn, wan bi awayek sîstimatîk îşkence dike û bi sedan kesan îdam dike, jinan jî ji ber têkiliyên nerewa bi mirinê ji riya kewirbaranê mehkûm dike, hevregezbaz "hemcinsgera"an jî bi Ceresqîlan ve didaliqîne, ne tenê mirov nikare got û bêjên dîplomatîk bi "asyaî" bibîne, belkî heta nabe bi vê nîzamê re dan û standinên aborî û bazerganî yên asayî jî bike.

**Totalîtarîzma dînî ya Îranê vegeriyaye bi hovêtiya destpêkîn**

Nivîskar têkiliyên bazerganî yên Îran û Alman dide ber rexneyan û niwîsandiye: "Bi taybet Alman divêt ji xwe bipirse ku çima li nîviya yekem ya îsal de, serbarê tehrîman, qeware û baristayiya hinardeyên xwe bi Îranê bi qasê %14'an zêde kiriye û çima bankê Ticaret a Îran û Ewropayê li Hamborgê de nehat daxistin.

Bi raya wî şirovekarê Almanî, bi dehan sal e ku karnasên riya verewandina girjî û aloziyan li xewna "lîbralîze kirin"a rejîma komara Îslamî de bi ser birin, lê berevajî wê rû da. Totalîtarîzma dînî ya Îranê ger em bêjin hinekê xawtir bibû, lê niha vegeriyaye bi tundajotiya destpêkîn. Lewma ev rejîme divêt li hemû biyav û astên navnetewî de were îzole kirin. Dorpêç û tehrîmên heya niha têr nekirine, divêt bi awayek meremdar hemû rê û kanalên pare ber bi Îranê bihên daxistin û qut bikin.

Bi raya Hirtsîngir, hemû pêwendî û têkiliyên fermî bi nûnerên Îranê divêt bihên qutkirin, meger eva ku berî her pêwendiyekê, berpirsiyarên wî welatî bi binpêkirin û pêpeskirina tund a mafê mirov û binpêkirina pêgeha mirovî li Îranê de bihên berbirûkirin. Ew dibêje ku ne tenê ji ber bernameya navikî ya wî welatî, belkî Komara Îslamî divêt encamên pêpeskariyên mafê mirov yên xwe hîs bike.

Nivîskar hişdariyê dide ku li egera ku pêşiya vê hêza metirsîdar nehê girtin yan nehê kuntirol kirin, wê demê divêt çavnihêriya qewmîna karesat û tirajîdiyek mezin li Rojhilta Navîn û heta li hemû cîhanê de bin.

**Die Wolt**

# Binîzamîkirina organên civakî



**Ceifer Mubeşirniya**

Çend roj berî niha di du nûçeyên cuda de hat zanîn ku li Îranê 60 hezar dibistan ji bo xwandina dersa Quranê ji bo zarokên sefa sê ya xwandina destpêkî hatine avakirin. Hêjayî gotinê ye ku ev karê han bi gotina berpirsên xwandinê di Îranê de, li himberî "piropagendeya zêdexwazan bi dijî Quran û Îslamê" hatiye encamdan.

Ji aliyek din ve jî piştî kuştina du pizîşkan li bajarê Tehranê û birîndarkirina du nojdaran di nexweşxaneyekê de bi awayek nerohn, biryar hatiye dan ku hêzên Întizamî û polîs bi berdewamî di nexweşxaneyan de bin, herweha alavên xweparastinê jî li bal pizîşkan hebin.

Di welatekê de ku hikûmet li ser bingeha olî hatibe ava kirin û di esla birêveberiyê de yasaya olî di rojevê de be, siroştiye ku bi awayek berbiçav girîngî bi xwendina olî tê dayîn.

Lê ewa ku di vî karî de cihê gumanê ye, du pirs in ku di vir de derdikevin holê û bi awayekê peywendî bi hevre hene. Ya yekimîn çima ji zarokên qonaxa destpêkî re dibistanên xwandina Quranê hatine avakirin. Dûyem jî gotina Birêveberê Şêvra Bilind a "Hînkirin û Perwerde" ye ku gotibû: " Bo jinavbirina rewşa nebaş a piropagendeya zêdexwazan pêwîst e xwandina hizr û ramana Quranî ji caran xurttir bikin", di heman dem de zêde kiribû ku Dibistanî û Mamosta di dibistanan de baştirîn zemîne ji bo belavkirina piropagendeya peyama "Înqilab" û Îslamê di asta cîhanê de ne.

Di vir de pêwîste ev yek bihê gotin ku desthilatdarên ku xwe mîratgirên ola Îslamê dizanin, xwe di refa yekimîn a birêveberên wê olê de dibînin, xwe bi nûnerê Xweda li ser erdê didin zanîn û bi bawera wan şîweya birêveberiya wan ji birêveberiya serdarên Îslamê cuda nine, herweha di wê bawerê de ne ku yasaya bingehîn a wan ji yasaya Quranî cuda nine, ji aliyê din ve jî gotina birêveberê Şêvra Bilind a Hînkirin û Perwerde yê, cihê gumanê ye ku di wan dibistanan de çi waneyek dê bihên gotin û bi mifah sitandin ji mesebîbûna civaka Îranê, dê zarokên xelkê çawan biperwerînin.

Dema ku rejîma Komara Îslamî di tepeserkariyên hovane ên ji aliyê organên nîzamî ve û bi siyasetên xwe ên qirêj di nawendên hikûmetî de bêakam ma, dest avêt çeqandina rehên xwe ên çepel di navendên civakî de. Bi taybetî dema ku derbek giran di çend salên dawî û bi taybetî di sala derbazbûyî de di Zanîngehan de xwar, û bi girtin, îşkence, destdirêjiyên cinsî û kuştin û îdama xwendekaran nekarî berî ji



pêla zanîn û mafxwazî û xweseriya qutabî û xwendekaran bigre, vêca demara eslî ya wan peyda kir û bi navê xwandina Qurana pîroz 60 hezar Dibistan weke destpêka piroseyek demdirêj di welat de ava kirin û biryar e ku di 15 meha Xezelwer rojî a îsal de dest bi karê xwe bikin.

Dema ku bi zimanê xwe radigihînin ku dibistan baştirîn cih e bo piropagendeya şoreşa Îslamî a Îranê, êdî gumanek namîne ku ew dibistanên ku bi navê xwandina Qurana pîroz hatine ava kirin, weke her car destpêka karek mirar û malwêranker a bi awayek nerm ku weke gurê di kewilê pez de, bi navê ola Îslamê belayek kartêkertir ji caran û xapandinek din tineserê xelkê. Di rastî de mirov dikare bêje ew dibistanên han dê bibin bingehên piropagendeya siyasetên qirêj û fesada Komara xwînmij û xapîner a Îranê.

Ev şîroveyên han bi vê sedemê tên kirin ku di xwandingehên Îranê de hertim xwandina Qurana pîroz hebûye, Quranxwînên Îranî hertim di welatên Îslamî de di rêza yekimîn de bûne, lê ma cihê xwandina Qurana pîroz di Hucre û Mizgevtan de ye yan dibistanên destpêkî. Lê ji komara Îslamî re çi cihek ku xelik bi evînek taybet ve rû jê bike, ew wir bi armanc digre bo tevlîkirin û ji rêderxistin di pêvajoya dirust a kar de.

Ji aliyek din ve jî di pilanek darêtî û di kumpiloyek bixof de, organek din a civakî di Îranê de nîzamî kir.

Heyamek berî niha li bajarê Tehranê du Pizîşk hatin kuştin û piştre di nexweşxaneyekê de du perestar hatin birîndarkirin. Piştî wan bûyeran, gotinên zaf ji aliyê Wezîrê Saxlemiyê ve hatin kirin, lê di rastî de ew gotin tenê hêcetek bûn ku bikare pasawek bi cih ji bo bi nîzamîkirina nexweşxaneyan bike.

Ew karê rejîmê êdî jidestdana bi yekcarî a her normeke exlaqî û mirovahiyê ye. Gelek caran hatiye bihîstin ku di demên şer de, nexweşxaneyên aliyekê dibin cihê xizmetên mirovanî ên birîndarên aliyê din "dujmin". Lê kar û kiryara Komara Îslamî û pîlanên li pêvajoya qazanc û berjewendiyên xwe de, hemû sînorên mirovahiyê bezandine û ji dujminahiya bi xelkê Îranê re jî derbas bûye.

Bi bawera min tenê cihê ku bi tewahî hêzên nîzamî ên rejîmê têde desthilatdar nebûn û şîweya kar bi awayek "profissional" û dûr ji xweyî û nexweyîtî dihat birêvebirin, nexweşxane bûn ku renge hatin û çûyîna xelkê û çareseriya nexweşan ji kuntirola tund a hêzên ewlehî bi dûr be, yan naskirina nexweşan bi taybetî naskirina kes û kar û hevalên wan nexweş û birîndarên ku pirraniya caran bi destê hêzên mirovkuj ên rejîmê dikevin nexweşxaneyan, herweha hevkariyên mirovhezane ku carna ji aliyê hin pizîşkan ve ji bo hin kesan tê kirin ku renge fikrên wî kesî li gel siyasetên Komara Îslamî hevahengî nebe, bi giştî xistine bin kuntirolek tund a nexweşxaneyan û di wir de jî dinavbera nexweşan de jî tovê xweyî û nexweyî û fitne û dubendî bihê çandin, ew jî bi biryarek hat nîzamîkirin, bi cihgîrkirina hêzên întîzamî û hêzên polîs herweha çekdarkirina pizîşk û kadroyên nexweşxaneyan û kuntirola tund li ser kes û karên nexweşan bi carek ewlehiya nexweşxaneyan tevlîhev dibe ku eşkere ye jî bi wê rewşê ya bi navê parastina pizîşk û kadroyan ji gefên kuştinê ji aliyê mirovên nenaskirî ve di nexweşxaneyan de êdî tu car ew nexweşxanane aramî û ewlehiyê bi xwe ve nabînin.

# Gelaleya Perlemana rejîmê û rewşa jiyana mamostayan li Îranê

**Şerîf Felah**

Rewşa dawîn a damezirîna mamostayên "hequltedrîs" di Perlemana rejîmê de ket ber bas û gelaleya çend meh berî niha a Perlemanê di bas li ser hat kirin, lê heya niha rêjeya zaf a mamostayên ku hejmara wan 60 hezar kes diben, çarenivîsa damezirîna yekcarî a wan nediyar e.

Pêtir ji 600 mamostayên dibistanan ên Îranê ku ji aliyê perwerdeyê ve bi neçarî hatine xanenişînkirin, bi mebesta derbirîna nerazîtiyê li himber Perlemana rejîmê dest bi civîna nerazîbûnê kirin û xwazyarê guhertin di pêkhate û birêvebiriya sîstema perwerdê di Îranê de bûn û daxwaz kirine ku hêza însanî a dilsoj, çewaşekarane li ser kar nihên derxistin. Lê tu ji berpirsên Perlemanê bersivderê xwastên mamostayan nebûn û ew pirsa girîng jî her wa çaresernekirî maye.

Qata mamostayan li Îranê her di destpêka hatine serkara Ehmedînijad, seba nerazîbûn li siyaseta tevlîhev û aloza sîstema perwerde û komek ji daxwazên sinfî û meîşetî ên rewa bi awayek xurt di seranserî Îranê de bi taybetî di navendên sînfî ên mamostayan li himber siyasetên şaş ên rejîmê rawestane û ew bizava nerazîtiyê xutrtir û geştir û çend xwenîşadan û meşên berfireh bi taybetî di bajarên Kurdistanê de derketin holê ku bi awayek hovane hatin tepeserkirin û pirraniya berpirs û çalakên saziyên sinfî hatin destbiserkirin û dadgehî kirin.

Ew pirsgirêk niha jî berdewam e û hemû salekê digel destpêka demsala Payîz ê û vebûna dibistanan, dîsan di serî de nû dibe û dikeve ber bas.

Mamosta weke qatek dilsoj û hînker di civakê de ku nifşên îro û pêşerojê bi hewl û tekoşîna wan perwerde dibin, li Îranê de li bal rejîmê xwediyê tu pêgeh û giraniyekê ninin, xêncî sepandina komek ji yasayên bê bingeh bi ser wan de, heta di warê meîşetî û bijîva jiyanê de jî di rewşeke pirr xerab de dijîn û bi neçarî ji bo çareseriya wan pirsan dest bo zaf karan dibin.

Hêjayî gotinê ye ji wê dema ku nûnerên Perlemana rejîmê deng bi wê gelaleyê dan ku gerek di heyamê pênc salan de 60 hezar mamostayên nefermî "hequltedrîs", bihên damezirandin, salek derbaz bûye. Bi vî halî jî heya niha hejmarek kêm hatine damezrandin û ên din jî her wa sergerdan in û di dema wajoya damezirandina girêbendê de, soz ji wan tê standin ku ger di heyamê pênc salan de nekarin bawer û hitbara berpirsên perwerdeyê bidest bixin, berpirsan mafê wê yekê hene ku girêbestên wan nû nekin û mamostayan jî mafê derbirîna tu nerazîtiyan ninin, ku wê yekê jî bi tewayî mamosta perîşe kirine.

Ku waye rewşa aloz, nebûna mûçe, zext û givaşên jiyan û meîşetê, zext û givaşeke zaf bo mamostayên nefermî "hequltedrîs" aniye û ligor serhejmariyan pêtir ji yek milyon ji mamosta û qata çandî di Îranê de di bin tundtirîn zext û givaşên abûrî û sînfî de ne û mêjdem e ku xwazyarê zêdekirina mûçeyê xwe ne û daxwaz dikin ku weke qatên din ên karmendên dewletê bihên hesibandin û di vê riyê de jî bi salane ku ev qata fidakar û cangorî zaf nirxêin manewî dane, lê heya diçe rewşa wan ber bi xerabtirbûnê ve diçe.

Yasaya birêvebiriya xedemata welat di sala 1386 a Rojî de hat pejirandin, serbarê hebûna zaf yasayên ku berevajî xwastikên



mamostayan in, lê bicihanîna wê yasayê jî paşketiye. Îsal hikûmeta Ehmedînijad xêr kir û biryar da ku tenê 6 ji sedî a mûçeya mamostayan zêde bike, ewa jî di halekê de ye ku di bendeke wê yasayê de hatiye ku mûçeya mamostayan dibe ligor wê nirxa helawsana abûrî a ku Banka Navendî radigehîne, bihê zêdekirin, lê ew soz jî şikand û bi cih negihand.

Lewra dikarîn bêjîn rewşa karî a jiyana mamostayên zehmetkêş ên welat, rewşa gişt qatên din ên civaka aloz a Îranê ye, lewma nerazîtiya wan dengê nerazîtiya hemû xelkê Îranê ye ku di qirika perwerdekarên dilsoz ên nifşa niha û pêşerojê de bilind dibe.

# Hakan Karsak: Kesa sereke ku "Mîn Dît" fînanse kiriye, dayîka Miraz e. wê mal û erebeyeke xwe firot ji bo despêkirina kişandina fîlmê

**Hevpeyvîn: Zinar Ala**

Di meha nîsana bihorî de ez çûbûm bajarê San Sebastianê ta ku ez beşdarî panelekê bim derbarê fîlma "Min Dît" ya Miraz Bêzar. Panel di nav çalakiyên festîvala Sînema û Mafê Mirovan ya bajarê San Sebastianê hatibû lidarxistin. Lîstîkvanê sereke di fîlma "Min Dît" de Hakan Karsak di vê panelê de jî cih girtibû. Di festîvalê de bi dehan kurtefîlm û fîlmên dirêj hatin pêşandan, di nav van fîlman de du fîlm hebûn ku behsa Kurdan dikirin, fîlmê Fransî "Welcome" û fîlmê "Min dît / Zarokên Diyarbekir" herdu fîlm jî di heman rojê de jî hatibûn nîşandan.

Berî nîşandana fîlma "Min Dît" di teatra "Victoria Eugenia" de Hakan Karsak bi çepikên germ ji aliyê cemawerê festîvalê hate pêşwazîkirin. Lîstikvanê sereke di "Min Dît" de nivîskara fîlmê Evrîm Alataş bi bîr anî û got: "Evrîm niha ne di nav me de ye, em pir ji wê hez dikin û em bîriya wê dikin". Hakan di dawiya axaftina xwe de li banî nihêrî û got: "Em dizanin ku niha ew li jor me dibîne, em serkeftina xebata xwe diyarî Evrîmê û hemû zarokên Kurd dikin".

Paşan me derfet bi hewce zanî û ew hevpeyvîna li bajarê San Sebastian ligel listîkvan Hakan Karsak re pêkanî.

**Cara yekmîn "Mîn Dît" li cîhanê li welatê Bask di festîvala "San Sebastianê" de hatibû nîşandan, û cara pêşî li Tirkiyê di festîvala sînamyê li Antalyayê hatibû nîşankirin, hûn dikarin ji me re**



**behsa hestên xwe û reaksyon cemawerên festîvalan li ser fîlmê bikin?**

Di festîvala "San Sebastianê" yekemîn car ez xwe di sînamyê de dibînim, min xwe li ser perdeya spî didît lê min tiştekî fam nedikir, ango min nizanîbû rastî bû yan jî xewn bû, di dawiya filmê de ji xewna xwe şiyar

bûm û min got: "Belê, ev xebatekî mezin e ji bo Kurdistanê". Li aliyê din jî min hêstir di çavên gelek kesan de dîtibû, gelek ciwan hatin silav dan me û hinekan jî Miraz Bêzar hemêz kirin. Gelekan li pey hev di dorê de sekinî bûn ta ku dengên nirxdayînê bidin fîlmê.

Li festîvala Antalyayê dîsa di hundirê salayê de reaksiyona cemawer gelek xweş bû, nêzîkî 800 kes hebûn, piştî dawîbûna fîlmê hemû rabûn ser piyan û dengê çepikan bilind bû, lê vê carê ez bi tirs dihasiyam û min digot piştî dawîbûna nîşandana fîlmê polîs wê li ber deriyê salayê li benda min bin. Di civîna çapemenî de kesên nijadperest hebûn û ji me re digotin "Hûn çawa dibêjin ka welatê min Kurdistan"?

**Li ser dika teatroya "Victoriya Eugenia" hûn bi ferehî li ser Evrîm Alataş axivîn û we serkeftina fîlmê diyarî wê kiribû. Çima?**

Wek hûn dizanin Evrîm di 12 Nîsanê de jiyana xwe jidest dabû, ev wendabûnek mezin bû ji bo Kurdistanê re. Evrîm mirov û nivîskarek pir baş bû, Evrîm weke Mihmed Uzun wê herdem di dilê Kurdan de bimîne, em wê ji bîr nakin, emê her çax wê bi bîr bînin.

**Gelo hûn çawa hatin hilbijartin ji bo vê rolê?**

Miraz hatibû Diyarbekirê û xebata min di lîstika Kurdî **"Mala Dînan"** û ya Tirkî "**Özgürlüğün Bedeli**" de dîtibû û di cih de gotibû: "This is my actor".

**Miraz ji min re gotibû:** Divê tu vê rolê bilîzî ji bo Kurd û Kurdistanê.

**Miraz Bêzar di hevpeyvîneke xwe de ligel rojnameya GARA behsa zerf û mercên dijwar derbarî fînansekirina fîlmê kiribû, Miraz gotibû ku lîstîkvan ti pere nestandin, hûn dikarin behsa van mercên fînansekirina fîlmê bikin?**

Rast e, hemû lîstîkvan ti pere li ser xebata xwe wernegirtine, ez bi xwe peran jî naxwazim, min ev xebat ji bo naskirina rastiya rewşa Kurdan kiriye.

Kesa sereke ku "Mîn Dît" fînanse kiriye, dayîka Miraz e. Wê mal û erebeyeke xwe firot ji bo despêkirina kişandina fîlmê. Her wiha merivekî Miraz, Fikry Kultay gelek peran dabû ji bo lêçûnên fîlmê, di dawî de jî derhêner Fatih Akin destek dabû Miraz ji bo derxistina fîlmê.

Kelema kêmbûna peran hîşt ku çêkirina fîlmê sê salan li berxwe bide.

Hêjayî gotinê ye jî, ku Miraz lêçûnên dibistanê dabû zarokên fîlmê û her




wiha ji bo lêçûnên din, wek mînak lêçûnên hatina Şenay ji bo festîvala Ghent li Belcîka.

**Te rola "Endamekî JITEMê" standibû, gelo rola te li Kurdistan û Tirkiyê çawa hate pêşwazîkirin?**

Berî ez bersiva pirsa we bidim, tenê dixwazim behsa bandora nîşandana Mîn Dît li festîvala Antalyayê bikim, ji ber ku em hemû kes li Tirkiyê dizanin ku "JITEM" li Kurdistanê bi karê kuştinê radibûn, û kiryarên kuştinê di bin navê **kiryarên nenas** de dihatin qeydkirin. Lê piştî festîvala Antalyayê Hem hikûmet hem jî artêş gotin ku ew JITEM ê nas nakin, JITEM rêxistinek e îlegal e.

Rola min ji aliyê Kurdan ve gelek hate ecibandin, lê di aliyê din jî kesên ku ji vê kesyetiyê heznekirin pir bûn. Li kolanan hinekan li min dinihêrîn û bi tiliyên xwe nîşanî min dikirin û digotin "Emê serê te jêkin", gelek email, telefonên tehdîtkirinê ji min re dihatin, têde dijûn li min û malbata min dikirin, bi xiyanetê ez tawanbar dikirim û her wiha nameyên tehdîtkirinê di bin deriyê malê de jî dihiştin".

Gelek hevalên min yên zanîngehê û teatroyê ji min re gotin: **"Êdî tu ne hevalê me ye"**

**Hûn bi Kurdî nizanin, gelo hûn çawa beşdarî lîstikên bi zimanê Kurdî dibin?**

Hevalê min yên şanoger alî min dikin, ez teksta lîstikê ezber dikim û rola kesaytiya xwe dilîzim. Lê ez zêde xebata şanoyê bi zimanê Tirkî dikim, niha em difkirin ku em çîrokên Kurdî bi Tirkî pêşkêş bikin wek Mem û Zîn, Cembelî û Binfeş û hwd.

**Wêneyên we yên bi cilên leşkerî yên dema leşkeriyê ne, ango we ji bo çêkirina fîlmê kişandibûn?**

Wêne berî çêkirina fîlmê me kişandibûn, dema leşkeriyê ne bîranînek xweş e ku mirov wêneyan wê demê li cem xwe bihêle. Ji cilên leşkeriyê û ji rahiştina çekan heznakim.

Lê wêneyên şahiya zewacê yên di fîlmê de derdikevin ew orîjînal in. Sevgî yê ku di fîlmê de jina min e her wiha di jiyanê de jî hevsera min e.

**Niha li Tirkiyê hin gav têne avêtin ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurdî, gelo hêviyên we ji van gavan çi ne?**

Berî her tiştî hêvî dikim ku zarokên me yên di zindanan de serbest bêne berdan her wiha ez azadî ji paralamanterên Kurd re dixwazim.

Ku zarokên me zimanê kurdî di dibistanan de bixwînin.

Em dixwazin di bajarên xwe de bê tirs bijîn, nawazxim ku tank û erebeyên leşkeran di bajarê xwe de bibînim, bi hezaran leşker di kolanên bajarên Kurdî de digerin, li Izmîr û Bursayê rewş ne wisaye.

**Kurtejîna Hakan Karsak:**

Hakan Karsak li Amedê sala 1975 an ji dayîk bûye.

Zewicî ye û zarokeke wî bi navê Jînda-Deniz heye.

Xwndina şanoyê li Ankara Sanat Teatro li û Ankara Çaqadaş Sanat Teatro standiye. Û li van cihan jî xebata şanogeriyê kiriye: Ankara Yeni Meydan Sahnasi, Izmit Yeni Meydan Sahnasi, Unicef, Navenda Çanda Mezpotamiya li Diyarbekirê û li şanoya şaredariya bajarê mezin ya Amedê.

# Di 48 saliya serjmartina awarte de Kurdên Sûriyê Ji Warên Xwe Koç Dikin

**Cemşîd Bagokî**

Kurdên Sûriyê (Cizîr, Efrîn û Kobanî), anko Kurdên Binxetê ji warê xwe koç dikin. Belê ji warên xwe koç dibin. Ji ber xizanî, feqîrî û hejariyê direvin û derbider dibin. Nexasin di van çend salên dawî de, piştî rûdanên 12 ê adara 2004 an û bi taybetî piştî ku dewletê fermana 49 an, di roja 10/09/ 2008 an de derxist. Ji wê hingê ve feqîrî û hejariyê konê xwe bi firehî di ser xelkên Cizîrê re vegirtiye û bi taybetî di ser Kurdan re.. Ta radeyekê ku pêkanîna gepa nanê rojane bûye problemeke mezin ji piraniya xelkê re..

Vêca xelkên Cizîrê ji neçarî, bajar û gundên xwe bê plan li şûn xwe dihêlin û koçber dibin.. Berê xwe didin bajar û metropolên wek Şam, Heleb, Beyrût, Emman.. li wan bi cih dibin.. jixwe yê ku zîrek û jêhatî be, ji xwe re dibêje; ya ji texte û ya ji bexte, milk û malê xwe difroşe, xwe li mirinê diqelibîne da ku xwe bi Ewrûpa ve bigihîne.. Di encam de, ji koka xwe bi dûr dikevin.. Ji jiyana xwe a xweristî vediqetin.. Ji ziman û kultura xwe a netewî qut dibin.. Sax ji warên xwe derdikevin, mirî li şûnewaran vedigerin.. Di navbera Xelîl û Celîl de jiyana xwe derbas dikin..

Ji rexekî din ve, gundên wan yên ava li rastê dimînin.. Dibin xirbe.. Bîrên ava wan dixitimin.. Bilbil ji şûnewarên wan bar dikin, kund li wan dixwînin.. Çûkên Beytik ji wan dixeyidin.. Kewên Gozel ji şûnewarên wan bar dikin.. Û êdî nema şivan û gavan li dor gundên wan têne dîtin.. Nema kes dengê reyandin û kewtikewta segan dibihîse.. Mişk, tûpişk û mar di nav kavlên gundên wan de henekan dikin..!

Jixwe xezeba Xwedê a herî mezin eve, ku ji berî çend salan ve baran nebarndiye.. Çemê Xabûr miçiqiye û çemê Ceqceq çikiya ye.. û di encam de zevî hişk mane.. Her wiha hin bi hin çolistan berê xwe fireh dike..

- Tu dibêjî qey dinya li serê Kurdên sûriyê xera bûye..! Qey fermana wan rabûye.. Erê ferman..!

Û wiha kesayetiya mirovên kurd yên ku li Cizîrê, Efrînê û Kobanî mayîn û yên jê derketî tê derizandin, şikestin û guhertin.. Di vê rewşê de zane bûne nezan, nezan bûne zane.. Hest û raman tevlî hev bûye.. Bawerî birîndar e û nalenala wê ye.. Belê, Kurdên Binxetê ji warê xwe koç dikin.. Xwendevano! De were çareyekê ji vê kêşeyê re bibîne?!

Gelo em berê xwe bidin kû û kê?!

Hema heta vir bes e û ez bi xêr û hûn bi selametî.

# Ferhenga Ansîklopedîk a Kurdî

Ew berhem bi du zimanan hatiye amade kirin. Bingeh bi zimanê Kurdî û daxuyanî kirin jî bi zimanê Tirkî ye.

Destpêka nivîsandina berhemê di sala 1977 an de heya roja îro, di navbeynê 33 salan de hatiye amade kirin.

Mezinahiya berhemê: Ferhenga Kurdî-Tirkî Ya Ansîklopedîk 3 berg û 2282 pel in. Di naveroka wê de 2533 wêneyên rengîn û yên reş û spî hene.

Di wê berhemê de ku ji sê ciltan pêk hatî, 100. 000 (sed hezar) zêdetir bêje (wûşe, sernivîs, dîrok, wêje, erdnigarî, civak û komelnasî, rêzanî (polîtîk) û biyografiyên Kurd û Kurdistan û yên hemî cîhan di berhemê de hatine kom kirin. Dar û ber, kulîlkên ji hemî rengan, ajal û riwêk, hemî bi rengên sirûştê, ewna bi rengên xwe yên taybet in.

Em dixwazim vê berhemê li welat jî bi alikariya weşanxaneyekê bigîhînin gencîneya çanda Kurd! Lê çi mixabin weşanxaneyek Kurd ewqas dewlemend li welatê me nîn e, ku vê berhema ji 3 ciltan pêk hatî bi çapek ofset bide weşandin. Ji bo vê jî, em li hêviya pêşniyaz û xwestekên saziyên Kurd resen in. Pêşniyazên bên, em bawer dikin ku yê duweroj de, çapkirin û belav kirina vê berhemê hêsantir bikin!..

*Kaniya Helbestan*

## "Şeva Hîcran"



**Helbest: Cegerxwîn**

Di tarîka şeva hicran çiraxek sîfet im ya Reb
Ji ser heta piyan are , bicarek vêketim ya Reb
Nema min sebr û aramek ji ber jana evîna dil
Evîn behre belê tenha di ber pêlan ketim ya Reb
Ji dîlber dûrketim lewra bela ser daye can û dil
Temaşa nakî ey zalim kî ez bê taqet im ya Reb
Meger pirsê li min nakî belê tim tê xiyala min
Şev û rojan bi nalînim bi ah û hesret im ya Reb
Şev û rojan bi kovan im bi bilbil re dilovan im
Hevalê xuncê baxan im , ji gul ez dûrket im ya Reb
Digel bilbil dinalim ez , zirav im wek hilal im ez
Şikestî rengê dalim ez , di halê hirqetim ya Reb
Di kûra 'eşqê borî me , yeqîn ez pîrê torî me
Di "lailma " derûrî me , di qeyda hicret im ya Reb
Meger ez Rustemê kurdim firaqê ez nexweş kerdim
Cegerxwînim siyahçerd im , di kunca xelwet im ya Reb

agiri

**Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:**
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail: agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com**

# Pênûsa zêrîn a Azadiyê ya sala 2010'an pêşkêşî Ehmed Zêdabadî hat kirin



Nawenda cîhanî a belavokan, roja Çarşemî, 6'ê Çiriya Pêşîn, di rê û resmek fermî de, Pênûsa zêrîn a azadiyê a sala 2010an pêşkêşî Ehmed Zêdabadî kir.

Ew nawend di sala 1948 a Zayînî hatiye damezirandin û binkeya wê li bajarê Parîsê ye. Rojnamevanên 122 welatan, endamên wê nawendê ne ku hejmara wan pêtir ji 1800 kes in. Armanca wê nawendê parêzvanî û jorde birina azadiya belavokan û hevkarî bi xweseriya wan a malî, berfirehbûna ragihandinên nivîskî û dicîtalî, hevkariya di navbera saziyên endam di asta millî, navçeyî û navnetewî hatiye avakirin.

Ew navend her sal di asta cîhanê de, yek ji rojnamevanan jiber çalakiyên azadîxwazane, weke rojnamevanê herî çalak yê cîhanê hildibjêre û Pênûsa zêrîn a azadiyê di yek ji bajarên cîhaê de jêre pêşkêş dike.

## Pêşmergeyekî PDKÎ Bawernameya Navnetewî A Rojanamevaniya Werzişî Wergirt



Pêşmergeyekî PDKÎ, bi navê Rehîm Ehmedîpûr, ji aliyê Civata Cîhanî a Rojanamevanên Werzişî a "A.I.P.S"ê ve bawernameya navnetewî a rojnamevaniya werzişî jêre hat bexşîn.

Wê civatê roja 10 -13'ê Îlona 2010'an, li bajarê Hewlêrê, ezmûn û çeribînek bo rojnamevanên werzişî di çend beşên: Nûçegihanî, rojnamevanî, fotografî, dîzayn û karê Radyo û Televîzyonê de û bi beşdariya çend mamosta û pisporên navnetewî lidarxist.

Rehîm Ehmedîpûr piştî çar salan karê berdewam li rêya Navenda Lêkolîna Werzişî a "R.F.G"a Amerîkayê, serbarê bidestxistina pileya yekem di beşa rojnamevaniya werzişî de, Pênûsa zêrîn bo parastina mafên werzişî ên gelên Îranê bi dest anî.

Navhatî wek rojnamevanê Kurd ê Rojhilatê Kurdistanê bawerînameya navnetewî a Civata Cîhanî a rojnamevanên werzişî wergirt.

# Romaryo bû Parlamenterê Brazîlê



Lîstikvanê fotbolê yê Brazîlî Romaryo (44), di hilbijartinên Parlamentoya Brazîl de bû parlamenter.

"Romario" ji partiya Sosyalist ya Brazîlê namzedê bajarê Rioyê bû û di hilbijartinên ku 136 milyon kesan deng da, wî jî 146 hezar û 859 deng wergirt û bû Parlamenterê federal ê Brazîlê. Tecrubeya siyasî ya Romaryo tune ye, lê wî di dema kampanyaya xwe de ji ber ku xwuşka wî jî handikap e soz dabû ku ewê programên sporê ji bo handikapan têxe dewrê.

**Romaryo kî ye?**

Futbolîzê Brazîlî Romario bi saya rola wî ya mezin a Kûpa cîhanê di sala 1994an, Brazîl bû şampiyon. Di lîsteya FIFA yê de yek ji efsaneyên Futbolê ye. Her weha xwediyê " Pêlava zêrîn" û xwediyê 1000 golan e ku tenê çend forvet gihîştine vê hejmarê.

# Muicîzeyên hinaran



Li gor lêkolînên zanîngeha "Edînburgha Îskoçyayê" her roj vexwarina ava hinaran ji bo helandina rûnên aliyê pişta mirovan dermanekî herî baş e. Feydeyên hinaran yên din wiha ne :

- Ji bo xetimandina rehên mirovan baş e.
- Mirovan ji pençeşêrê diparêze.
- Di hinarê de li dijî pençeşêrê antîoksîd hene . Radeya antîoksîda ku di ava hinarê de heye, li gor ji şaraba sor , çaya kesk û ava portqalê 3 car zêdetir e.
- Weka merhem tê bikaranîn .
- Ne tenê fêkiya hinar, kulîlk dendik, av û qaçilkên hinaran dema ku bi hev re bên kutandin di tibbê de weka merhem tê bikaranîn.
- Hêzeke mezin dide laş û dilê mirovan . bo zekemê baş e.
- Hinarên şêrîn hêzekî mezin dide zikê mirovan
- Ji bo kuxika mirovan baş e. Hinara şêrîn ji bo qirik û cêgeran re feydekî mezin dide.
- Ji bo goştê diranan "pî" jî bifeydeye.
- Kulîlka hinaran birînan baş dike

**Rojevakurd**

# Mêrê 130 jinan û bavê 210 zarokan bû



''Akuku Danger"130 carî zewicî bû. Mêrê 130 jinan bû, jina wî ya herî dawîn, 18 salî bû.
Ew di 92 saliya xwe de mir.
Ew ji welatê Kenya bû, lê belê di zewacê de rekora dinyayê şikandibû.
Navbirî 30 carî jî jin berda bû.
Cara yekemîn ew di sala 1939' an de zewicî bû.
**avestakurd**